Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 58
28'ê Şibat
Buha: 150 Tûmen

# agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Pîroz Be 8'ê Adarê, Roja Cîhanî Ya Jinan

Em bi pêşwaziya 8'ê Adarê, Roja Cîhanî ya Jinê ve diçin. Em di demekê de vê roja cîhanî bibîr tînin ku hêj di piraniya welatên cîhanê û nemaze di welatên Rojhilata Navîn de maf û azadiyên jinan tên binpêkirinê. Bi vê boneya cîhanî em pîrozbahiyên xwe yên herî germ ji hemû jinên cîhanê û Kurdistanê dikin. Bi hêviya serkevtina xebata jinan bo azadî û wekheviyê... **Desteya Weşana Agirî**

Di Cinayeteke hovane Li Bajarê Bazirganê de:

# 5 Kes Ji Endamên Malbatek Kurd Hatin Serjêkirinê

Roja sêşem, 01.12.1385 (20.02.2007)'an, hin kesên ne naskirî êrîş bi ser malbateke Kurd li gundê "Yarmiq" a derdora bajarê Bazerganê kirine û bi awayeke hov û nemirovane serê 5 kes ji endamên vê malbatê birîne.

Navê goriyên vê cinayetê wiha hatiye zanîn:

1- Riza Reşîdî (33 salî)
2- Meryem Eyare (26 salî)
3- Inayet Reşîdî (7 salî)
4- Lewzîn Reşîdî (2 salî)
5- Soniya Reşîdî (1 salî)

Hêjayî gotinê ye ku kes û karên kuştiyên han piştî haydarbûnê, bi merema eşkerekirina nasnameya bikujên wan, doz birine dadgeha Makûyê, lê her di gava yekemîn de dadgehê ne tenê tu cehdek nekiriye, belku gef ji wan xwarine ku nabe li pey vê pirsê bekevin, nexa li şûndeçûna vê arîşê dê ji wan re asteng û pirsgirêkên din çê bike.

Gumana vê çendê heye ku cinayeta han ji aliyê kirêgirtiyên rejîmê ve hatibe kirin, lowma rejîm tu hewlekê li hember de nade. Divêt were gotin ku xelkê gundê "Yarmiq"ê hertim piştevan û dilsojên tevgera rizgarîxwaz a gelê Kurd bûne.

Gera Yekem Ya Gotûbêjên Welatên 5+1 Hate Lidarxistinê,

## GOTÛBÊJ DÊ ROJA PÊNCŞEMÊ BİDOMİN




Roja duşem, 26'ê Şibata 2007'an gotûbêjên nûnerên pênc endamên dayîm yên Konseya Ewlekariya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî tevî Almanya, naskirî bi girûpa 5+1, ji bo amadekirina biryarnameyeke nû li dijî Îranê li bajarê London ya Îngilîstanê li hev civiyan. Wan nekarîn li ser gera nû ya diyarîkirina cezayan li ser rejîma Komara Îslamî ya Îranê li hev bikin û biryareke nû bigirin. Rejîma Îslamî ya Îranê ji ber meşandina bernameyên xwe yên Etomî û meyandina Uraniyûmê ji aliyê Konseya Ewlekariyê hatiye cezakirinê (biryara 1737), lê ji ber ku dest ji xebat û hewlên xwe li dor zengînkirina Uraniyûmê ber neda, welatên han biryar girtin ku ji bo girtina cezayên gera duyem bi hevre kom bibin. Amerîka û welatên din yên Ewropayê gihîştine ser vê baweriyê ku xebatên Etomî yên Îranê ji bo bidestxistina bombeyên Etomî tên encamdan, ji ber vê çendê, wan careke din ji dewleta Îslamî ya Îranê xwestin ku bi berçavgirtina biryarnameya 1737'an ya Konseya Ewlekarî ya NY'ê hemû xebatên xwe yên mehandina Uraniyûmê hilawîse. Qirar e ku gotûbêjên welatên 5+1 di vê derbarê de sibê roja pêncşem bidomin.

# Ronvekirina Sekretariya PDK Îranê, Derheq Nameya 87 Xwendekarên Kurd Di Zanîngehên Îranê De Û Bersiva Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê Bi Nameya Han

87 xwendekarên Kurd di Zanîngehên Îranê de derheq cudabûna taqimek ji Kadro û Pêşmergeyên PDK Îranê û rexneyên xwe seba vê cudabûnê û mehkûmkirina wê û di heman demê de piştgiriya xwe ji PDK Îranê, komek rexne û pêşniyar ji bo Sekreterê Giştî yê PDK Îranê şandine û daxwaz kirine ku bersiva nameya wan bihê dayînê.

Di vê nameyê de qala vê çendê hatiye kirinê ku di vê derbarê de wan nameyek jî ji bo Mamosta Ebdula Hesenzade şandine û hinek rexne jî ji wî girtine.

Ji ber girîngiya nameya han û her wiha bi liberçavgirtina vê rastiyê ku naveroka wan namane dikare gotin û pirsên hejmarek zaf ji xelkê dilsoz û demokratperwer yê Kurd di Kurdistana Îranê de be, Sekretariya PDK Îranê bi baş zanî ew nameya ku ji bo birêz Sekreterê Giştî yê PDK Îranê hatiye nivîsandinê û bersiva wê jî belav bike.

Em hêvîdar in sûd û feyde jê were wergirtinê.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Sekretariya**
**14.02.2007**
**25.11.1385**



# Nameya 87 Xwendekarên Kurd yên Zanîngehên Îranê ji bo Sekreterê Giştî yê PDK Îranê

**Tevî silavên şoreşgerane!**
**Rêzdar Mistefa Hicrî,**
**Sekreterê Giştî yê PDK Îranê!**

Di destpêkê de serbarê xuyakirina xem û nerhetî ji bo cudabûna vê dawiyê di nava refên PDK Îran de, em weke Civaka Xwendekarî ya Kurd li Îranê tevî mehkûmkirin û bi şermzanîna vê kiryarê di vê dema nazik û çarenivîsaz de ku herêm, Îran û Kurdistan tê de derbas dibe, ne tenê di xizmet û berjewendiyên tevgera gelê Kurd de nine, belkî zirar û ziyaneke ne şûndanê ji xebata rizgarîxwazane ya Kurd dide û çi tişteke din ji bilî dilxweşî ji bo dijminên gelê Kurd û neyarên PDK Îranê di vê cudabûnê de nabîne. Her cudabûn û veqetiyanek di nava her yek ji aliyên siyasî yên Kurdistanê, di vê dema nazik û hestyar de tenê viyan û îradeyê ji bo her çiqas zêdetirkirina serkut û tund û tûjiyên xwe li hember civatên xelkê de dide dujminên neteweya kurd, lewra bi baweriya me veqetiyan û cudabûn di vê demê de bi tenê hêlana civatên xelkê Kurdistanê di çeper û orta xebatê de ye û sehnekirin bi berpirsiyariyê li hember ew erk û wezîfeyan e ku li ser milê we ne. Civaka Xwendekarî (Camiê Danişcoyî) daxwazê ji tev opozîsyona Kurd bi giştî dike ku bi hestkirin bi berpirsiyariyê û bi dengeke hevgirtî ji bo parêzvanî û berevanî ji mafên civatên xelkê Kurdistanê hewlê bidin.

**Rêzdar Mistefa Hicrî!**

Renge ji bo gelek kesan tişteke gelek ecêb be ku di demeke wiha de, Civaka Xwendekarî yan her yek ji tex û qatên xelkê Kurdistanê, ji Partiya Demokrat berevaniyê bikin yan rexne bikin, lewra nîşandana helwesta bi vî awayî di her demekê de yan ji bo her kes an aliyekê nabe, belkî heke em bi çaveke vekirî ve mêzeyî pirsan bikin, ji her kesekê re derdikeve ku sedemên wê çi ne.

Heke em bihên pesna PDK Îranê bikin, em dibêjin:

Zanîngehek e, ku ji destpêkê re biryar hate dayîn ku waneyên welatparêzî, mafê gel, parastina welat û nîştiman, azadî û hwd... tê de werin gotinê. Li ber destên xortên herî demokrat, herî aştîxwaz, herî zana û herî xweştevî yên sedsala 20’an, zanîngehek tejî ji mamosta (fêrkar) û şagirdên xweşnav û welatparêz perwerde bû, perwerdekerê bîr, bawerî, hizr û ramaneke nûjen û pajiq.

Lewra li vir derdikeve ku armanc ne berevanîkirin ji takekes e, belkî ji bo hebûna neteweyekê ye, berevanî, parastin û zindîragirtina dengê neteweyek belengaz, parastina mînberekê ye ku dengê bêpariya xwe digehîne guhê gelên din, lewra dibêjim: Ev nameya me, hawara hezaran evladên şehîdan e, dengê ew kesa ye ku wekî qeleyeke hesin ku di rojên tarî yên Firewnên herî xwînmij, herî bêwijdan û herî nazan yên îro de ne û ji bo hatina roj û ronahiyê çav li rê ne.

**Hêja, Hicrî!**

Civaka Xwendekarî ya Kurd bo rêzgirtin ji pirensîpên demokrasiyê û ji bo cihgirkirin û herwiha hînbûnê, fêrkirina ceribînên demokrasiyê bi civatên xelkê Kurdistanê, bi pejirandina rewa û şeriyeta kongreya 13’ehem ya PDK Îranê, serbarê rexne û gazindeyên zaf û bicih ji we yê rêzdar û pêka baweriya kûr ya Civaka Xwendekarî ya Kurdî bi wateya naverok û kakila demokrasiyê, piştgiriya xwe ji bo hurmet û berheqiya kongreya sêzdehem ya PDK Îranê îlan dike û alîkariya fikrî û menewî tevî rêberiya partiyê radigehîne û em daxwazê ji we yê rêzdar dikin, bi liberçavgirtina usûl û azînên demokrasiyê, bi dilekî vekirî, rexne û pêşniyarên Civaka Xwendekarî ji bo her çiqas çêtir birêveçûna kar û xebatên partiyê ku di van xalên jêr de tên, berçav bigirin.

**Birêz, Hicrî!** Her wekî em hemû dizanin, piştî şehîdkirina Dr. Qasimloyê rêber û mamostayê mezin yê gelê Kurd, xweştevî û hezkiriyê civatên xelkê Kurdistanê bi giştî û nemaze ciwan û xwendekaran û li pey şehîdkirina Dr. Şerefkendî, rûçikê rastbêj, micid û wefadar bi Kurdistanê, xebata gelê Kurd bi giştî û PDK Îranê bi taybetî bi gelek tiştên ne hewce û bênaverok re berbirû bû.

Berbirûyê gelek bername û pilanên sepandî ji her aliyekê ve bû. Dengê Partiya Demokrat bi hewl û cehda du rêberên şehîd sînorên xwe bezand, ber bi vê hindê diçû heta di nava kom û komeleyên navdewletî de, cihekê ji bo xwe û gelê Kurd peyda bike, lê bername û pilanên sepandî yên gelek kesan li hundir û derveyî partiyê, roj li pey rojê rastî têkçûna siyasî, bi wateya xwe ya tewaw hat û di heyamê dehsala derbasbûyî de rastî gelek qeyran û kirîzên navxweyî bûye.

Hinek ji rêberên partiyê bêy vê çendê ku di fikr û hizra peydakirina mekanîzmeke çêtir de bin, roj bi roj diyarok û berçaviyên kirêt û xirab wekî bask û baskçêkirin, herêmçêtî û ... di nava refên partiyê de xurt û bihêz dihate kirin û rêberên partiyê, dijminên eslî û xebata rastîn ji bîr kiribûn. Heta vê çendê ku bi nav **navdarên partiyê**, partî rastî veqetiyaneke din kir.

Lewra Civaka Xwendekarî di nameyeke cuda de ji bo rêzdar Hesenzade, daxwaza ravekirin û ronvekirina zelal û usûlî ji bo Civaka Xwendekarî ya Kurd dike.

**Rêzdar Hicrî!** Civaka Xwendekarî serbarê rexneyên zaf ji we yê birêz, dibêje gelo Mistefa Hicrî di heyama 10 salên borî de, wekî endamekî rastbêj û xwedî derbasbûyiyekî paqij, nekarî yan nexebitî bona ji navbirina pirsgirêkên partiyê, heta ku ruha alîkarî û bi hevre karkirinê di nava partiyê de hêdî hêdî ji nav çû û partî tûşî vê qeyran û kirîzê hat?

**Hêja Hicrî!**

Civaka Xwendekarî ji bo serxistina kar û xebatên partiyê û bona zindîkirina ruha hevkarî û bi hevre karkirinê, pêşniyar û têdîtinên xwe ji bo partiyê û şexsê we yê rêzdar re ku di nav çend xalên jêr tên, dixe ber destê we. Em hevîdar in ku bi li berçavgirtina berjewendiyên neteweyî û sehkirin bi berpirsiyarîkirinê heya wî cihî ku çê be û îmkan hebe, di kar û bernameyên partiyê de kar pê bikin. Em hêvî dikin ku me bi vî awayî ji bo tejîkirina mewda û fasîleya navbera partiyê û civatên xelkê bi giştî û

nemaze ciwanên xwendekar gav avêtibe û ev yek pêvajoyê bona beşdarîkirina tev civatên xelkê xweş û hêsan bike, di rêvebirina karên partiyê de, em hewlê bidin bi beşdarîkirina giştı aliyekê, partiyê vegerînin bo nava dilê Kurdistanê.

1. Vegeriyan bo nava kom û komeleyên navneteweyî û hundirîn, bi hêz û qaweteke zêdetir ji berê, yek ji wan vegeriyan bo nava rêxistina navneteweyî ya Enternasyonala Sosyalîst.

2. Girîngîdan bi ciwanan û perwerdekirina endamên partiyê û li şûndana ew paşdemayîna partiyê di warê perwerdehiya Kadroyan de.

3. Biha û giringîdan bi ciwanan û beşdarîkirina wan di kar û barên partiyê de, nemaze post û berpirsiyariyên bilind, bi armanca elimandina wan ji bo pêşeroja partiyê, herwiha mifahwergirtin ji wan kesên ku ji Îranê direvin û danîna wan li gorî şiyan û karîna wan di cihê jêhatî de.

4. Jordebirina radeya hişyariya jinan di warên civakî, siyasî, çandî û wd... . Şûndan û hevberdana wê binirx û bêqîmetkirina ku di salên derbasbûyî de derheq jinan hatiye kirin û neçarkirin û beşdarîkirina wan di kar û barên partiyê bi awayekî çeleng û zindî.

5. Bersivdan û rû bi rû bûn bi awayên mentiqî û hemdem tevî pêvajoya rojê de, li hember ev kes yan aliyan ku bêhurmetî yan sivikatiyê bi rêberên neteweya Kurd dikin ku her kes çavnihêriya vê çendê ji Partiya Demokrat wekî partiyek neteweyî, li Kurdistanê ji bo berevanî ji gel û welat heye.

6. Bilind û zindîragirtina felsefeya fikrî ya Dr. Qasimloyê nemir û tekezkirin li ser kesayetiya zanistî, siyasî, çandî û civakî a wî rêberê mezin û nasandina herçiqas bêtir ji bo ciwanan û zindîragirtina bîranîna partiyê bi giştî û rêberên şehîd bi taybetî.

7. Girtina helwesta bicî û jêhatî di dem û çaxê xwe de, li hember ew guhartinên ku di pêşerojê de çavnihêrî jê tê kirin ku dê ji bo gel û partiyê derkevin rojevê û xwe berhevkirin ji bo pêşerojê.

8. Axavtin û hevpeyvînên taybetî (şexsî) û hizbî ji hev bihên cudakirinê û her hevpeyvînek ku bi navê partiyê ve dibe, bila bi hevahengiya tev endamên rêberiyê be, heta partî û biryarên partiyê bandora erênî li ser guhartinên nav civaka Kurdistanê hebe.

9. Diyarîkirina hin kesên jêhatî wekî nûnerê Sekreterê Giştî bo kar û barên ciwan û jinan û ji bo gihîjandina arîşe û pirsgirêkên wan bi Sekreterê Partiyê, heta bi hevkariya tev aliyekê em bihewilînin mekanîzma herî baş ji bo kêmkirina pirsgirêkên taybet bi wan kesan bikar binîn.

10. Tekezkirin li ser pêşdebirina siyasetên partiyê li hember Komara Îslamî li bajarên Kurdistanê ku gefa ji holê rakirina nasnameya Kurdistanê jê tê kirin weke Başûrê Kurdistanê: Makû û ..., Bakûra Kurdistanê wekî Kirmaşan, Îlam û ..., heya ku di pêşerojê de ji bo Kurdistana Rojhilat, Kerkûkek din çê nebe, lewra hewce ye serkirdayetiyê Kurd bi giştî û rêberiya Partiya Demokrat bi taybetî di hizra bername û pilanek baş ji bo wê demê danên.

11. Giringîdana herçiqas bêtir bi zaravên din yên zimanê Kurdî di dezgehên partiyê, ji bo xizmetkirina zêdetir bi wan zaravan û dewlemendkirina awayê diyalekta siyasî ya PDK Îranê bi awayekî berfireh.

12. Zengînkirina herçiqas zêdetir ya televîzyon, radyo, rojname û kovarên partiyê di warê naveroka zimanê wan û bernameya baş û bisûd û ....

13. Gazîkirin û vexwandina bi şan û şeref ji wan Kadro û Pêşmergeyan ku ji partiyê derketine, heya careke din bo nava partiyê vegerin. (ev yeka ji bo wan kesan nabe ku bêhurmetî yan sivikatîkirin bi partiyê û rêberiya gelê Kurd kirine).

**Birêz Hicrî!**

Civaka Xwendekarî ya Kurd hêvîdar e, PDK Îranê bi bernameya baş û bi hêzek mezin û bi wateya xwe ya kemilî vegere bo nava kom û komeleyên navneteweyî û hundir. Bila bi hewl û tekoşîna hemû civatên xelkê Kurdistanê em ji bo bidestveanîna mafên zevtkirî yên gelê Kurd bixebitin.

**Civaka Xwendekarî ya Kurd di Zanîngehên Îranê de**

**Silav li canê paqij yên şehîdan**
**Silav li girtiyên siyasî**
**Silav li Qasimloyê zana**
**Serkeve xebata neteweyî ya xelkê Kurdistanê**

Têdîtin:

Erkê gehandina vê nameyê li stûyê hevalê cihê hitbar û baweriyê yê Civaka Xwendekarî, Kekê Kamran Resûlî li welatê Swîsê ye ku wî ev kare bi berpirsiyarî ve girte stû.

# Bersiva Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê, Rêzdar Mistefa Hicrî Ji Bo 87 Xwendekarên Kurd Di Zanîngehên Îranê De



***Ji bo 87 xwendekarên Kurd di Zanîngehên Îranê û ew ezîz û xweşteviyên din ku naveroka nameyê gotina dilê wan e jî***

***Silav û hurmet!***

***Gelî rêzdaran!***

Nameya we gihîşte destê min, rexne û pêşniyarên we ku ji hesta germ û gur ya welatparêzî û dilsoziyê ji bo neteweya me ya belengaz û zulmjêkirî çavkanî girtibû, ez zêdetir ji berê bi pêşeroja ron û zelal ya azadî û rizgariyê hêvîdar kirim. Çi peyamek ji vê hêvîdartir e ku komek ji xortên hişyar yên gelê me di vê rewşê de ku hin kes – her çiqas kêm – toyê bêhêvîtiyê di dilê xelkê me de diçînin û dixwazin wisan nîşan bidin, yan wilo fêm kirine û tê gihîştine ku cudabûna komek ji Kadro û Pêşmergeyên PDK Îranê, xebat ji bo rizgarî û serbestiyê kuta bûye û hevdeng tevî dehan hezar kes ji xortên demokrat pişta partiya xwe digirin û partiyê ber bi pêşketinê hay didin û eyb û kêmasiyên wê jî destnîşan dikin û digehînin rêberên wê. Em van rexne û pêşniyarane bi hembêzeke vekirî werdigirin, ji ber ku em li ser vê baweriyê ne ku rexne bi wateya xwe ya resen, alîkar û hêza liv, hereket û berbi pêşveçûnê ye. Ji bilî vê yekê hûn xwediyên rastîn yên PDK Îranê ne û rexnegirtin û pêşniyarkirin erkê we ye, lewra kes nikare ji wan rexneyan dilgiran bibe.

Hevalino, gotin û qise gelek zaf in, lê di vê derfetê de, ez dê bi kurtî bi we re bipeyivim:

Kongireya Sêzdehem ya partiya me rast ji bo wan merem û armancan pêk hat ku we di pêşniyarên xwe de qala beşek ji wan kiriye. Nûbûn, rê û derfetdayîn ji ciwana re û amadekirina wan ji bo bidestvegirtina rêberiya partiyê, alîkarîwergirtin ji hêz û şiyana jinan, nûkirina ragihandina partiyê, guhertin di pêkhateya partiyê bi awayekê ku bersivderê serdem be û hwd... . Lê mixabin her di gava yekem ya piştî Kongreyê de, pirsgirêkên hundirîn berçêla me girtin û tu delîve û fersendek ji bo cîbicîkirina bernameyên Kongreyê ku xwestek û daxwaziya bicî ya endamên partiya me bû, nehêla, ku eva bi xwe "Mesnewî heftad men kaxez şewed" (merem ji vê gotina Farsî eva ye ku baskirina vê pirsê qasê 70 Men –her menek 3 kg e- kaxizê cih dixwaze). Rêberiya partiyê ku di vê heyamê de hewl û bizaveke zaf da ku ew hevalene li cihê mihanegirtinê, kar bikin û dengê piraniya zaf ya xelkê bipejirînin, heta em amade bûn ku ji bo razîkirina wan kongreya çardan gelek zûtir ji dema xwe pêk bînin, lê nehate pejirandinê û ewa ku qewimî ku ji bilî wan bi xwe û dujminên gelê me, kesê ew tişt nedixwest.

Niha ku ew arîşe nemaye, dema vê yekê hatiye ku em bi micidî kar bikin û bernameyên kongreyê cî bi cih bînin. Me dît ku di gava yekem de, di civîna nehemîn ya Komîteya Navendî de du jin wekî endamên Ravêjkar yên Komîteya Navendî hatin hilbijartinê û em dê gav bi gav û li gor îmkan û derfetê soz û ehdên din ên kongreya Sêzdehem ku pêşniyarên we jî li xwe digire, cî bi cî bikin. Ji ber ku rêberiya partiyê bawerî bi pêkanîna wan guhertinane heye û di hember kongreyê de xwe bi sozdar dizane.

Di vê rêyê de em çavnihêriyê ji we û hemû dilsozên PDK Îranê dikin ku her wisan bi me re bin, bi rexneyên xwe alîkariya me bikin û bi piştevaniya bêrawestiyan ya xwe weke herdem ber bi serkevtinê hêz û qawetê bi me bibexşînin.

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, partiya hemûyan e, partiya gelê Kurd di Kurdistana Îranê de ye, lewra bi şiyan û karîna me tevan dê berbi pêşve gavan bavêje.

**Her bijîn bo partiyê û gelê me**
**Hevalê we – Mistefa Hicrî**
**14.02.2007**
**25.11.1385**

# Zimanê Zikmakî, Şademara Heyatî Ya Neteweyan

Selîm Zencîrî

Yek ji hewcehiyên bingehîn yên civaka mirovahiyê û alava çêkirina têkiliyan û pergala li hev halîbûnê ziman e. Ziman keresteya derbirîna hest û soz û veguhastina ceribîn û zanyariyan bi hevdu re ye. Ziman bi seneda şûnas û nasnameya neteweyî ya her neteweyekê tê hesibandin û di rastî de yek ji pîvanên selimandina her neteweyekê, girêdayî hebûna zimanê wê ye. Bi awayekî din, ziman şademara heyatî ya hebûna neteweyan e û bi birrîna vê şademarê jî hemû biha û mîratên çandî yên wê neteweyê, jî dikarin werin jinavbirinê. Çimku tepeserkirina çandî ya neteweyan ji ziman ve dest pê dike, herwiha geşe û pêşxistina çanda neteweyan jî di gava yekem de bi geşeya zimanê wan girêdayî ye.

Li gor çavkaniyan niha 6000 zimanên cur bi cur di cîhanê de hene ku bi hevre karwanê şaristaniyet û mîratê mirovahiyê pêk tînin û her yek ji wan jî bi xezîneya çandî ya neteweyan tê hesibandinê. Li ser mirov e ku vê mîrata binirx biparêze û berevaniyê ji mafê jîn û geşandina zimanê xwe bike. Lê mixabin bi sedemên cur bi cur yên siyasî, dîrokî û ... gelek ji wan zimanan bi mirin û nemanê re berbirû bûne. Lewra Rêxistina Yoniskoyê ji sala 1999'an ve roja 21'ê Şibatê wekî **Roja Cîhanî ya Zimanê Dayîkê** binav kiriye û daxwazê ji hemû welatan dike ku girîngiyê bi curbicurbûna zimanan û geşandina wan bidin û ji bo parastina wan cehd û xebatê bikin. Herwiha di Daxuyaniya Cîhanî ya Mafê Mirovan de hatiye ku zimanê dayîkê ji mafên bingehîn yên mirov e û tekezê li ser vê hindê dike ku erkê hemû welatan e delîveya xwendin bi zimanê zikmakî û geşandina wê bo neteweyan pêk bîne.

Lê mixabin rûpelên dîroka mirovahiyê di vê derheqê de tejî ji zulm û zordariyê ye û şahidiya gelek bûyerên tal ji me re dide ku çiqas cinayet derheq bi vê mîrata çandî ya mirovahiyê hatine kirinê. Herwiha ji aliyê din ve jî xebat û berxwedanî û qurbanîdana azadîxwazan û neteweyên bindest li dijî xedar û çimisankerên maf û azadiyan ji me re nîşan dide ku bi rûpelên zêrîn li dîroka xebata çewsaweyan tên hesibandinê.

Li vê derheqê de hikûmet û rejîmên dîktator û totalîter cehd û tekoşînek zaf bo bêparkirina gelan ji vî mafê siruştî meşandine, heya ku bi berbendkirina zimanê wan, rê ji bo şoştina navê wan di dîrokê de xweş bikin. Çimku ziman faktera eslî û bingehîn ya nasnameya neteweyî ye, lewra pitir ji her fakterên çandî yên dinê rûçikê siyasî bi xwe digire û dibe bi mijara pirs û nîqaşan.

Siyaseta qedexekirina zimanê dayîkê di welatên nedemokratîk û dîktator de her di yekem roja dibistanê de dest pê dike û ew rola erênî û pozetîv a dibistanê ku bi pira navbera malbat û civakê tê hejmartinê, di wan welatan de berevaj dimeşe. Ji ber ku zarok di yekemîn girîn û çavvekirina xwe de, bi soz û atife û zimanê diya xwe re nasyar dibe, bi zimanê diya xwe hînî tiştan dibe, têkîliyan pêk tîne û hêdî hêdî hesta neteweyî ya wî/ê xurt dibe.

Lê di yekem roja dibistanê de bi ziman, perwerde û metodek din berbirû dibe. Zimanek ku heya wê demê hîn bûye û pê peyiviye û kariye hest û sozên xwe pê bîne ziman û rûmet û şanazî pê kiriye, di dibistanê de nahê bikaranînê û xwediyê tu biha û hitbarekê nine. Lewra bandora nerênî li ser rewan û pisîkolojiya wî/ê dike, hundir û kesatiya wî/ê hûr dike û ji qasa hitbar û baweriya wî/ê bi xwe, malbat û civaka wî/ê kêm dibe.

Erê gelo ger meremek şovenîstane û dijî mirovî bona helandin û asmîlekirina ziman û çanda neteweyekê ninin, çima xwandin bi zimanê dayîkê qedexe dikin? Ger merema wan têkdan û tevlîhevkirina nasnameya neteweyekê û nehiştin û reşkirina wê di dîrokê de nebe, başe em dikarin çi navekê lê bikin?



Niha em di demekê de dijîn ku kerameta însanî û mafê mirovan bûye bi elinda dirûşmên navend û saziyên medenî, rewşenbîrî û Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, lê niha jî hin netewe dixuyin ku ji aliyê neteweyên serdest û rejîmên dîktator û serberedayî ve tên çewisandin. Îran jî ku welatek pirneteweyî, pirzimanî û pirçandî ye, ji mîratek dewlemend û binirx ya çandî ve bi mifah e. Gelên Îranê ku xwediyê dîrokek dûr û dirêj ya bi hevre jiyana li vê cihwarê yadigar û mîratmayî ji bav û kalên xwe ne, lê mixabin bi salan e ku gelên ne Fars ji zulm û zor, bêmafî, fetisandin û tepeserkirina rejîmên desthilatdar di Îranê de dinalînin, ji mafên herî destpêkî yên xwe ku xwandin bi zimanê dayîkê ye, hatine bêpar kirin û ne tenê delîve û fersenda "sermayegozarî", lêkolîn, geşandin û pêşxistina zimanî û çandî bi wan re nehatiye dayîn, ji ber ku rêya perwerde û hînbûna zimanê wan jî, ji wan re hatiye qorixkirinê û tu pûte û girîngiyek bi wê xezînê û mîratên çandî yên neteweyên ne Fars nedane. Nemaze di hin deveran de jî siyaseta guhertina demografiya parzemînê dayîk yê neteweyan ji rêya veguhastin û mişextên neçarî bi merema têkdana nasnameya wan û helandin û asmîlekirina wan di neteweya Fars de birêve birine û dibin.

Qedexekirina ziman û asîmîlekirina neteweyên bindest di Îranê de kirine bi pêxora ser sifrika xwe ya bi navê Farssîzmê. Rejîm xwe û neteweyên din yên Îranê li gor ziman û nasnameya kêmaniya serdest û desthilatdar a neteweya Fars pênase dike û nejadperestiya Farssîzmê kiriye bi siyaseta fermî ya xwe û dixwazin bi yekcarî rûçik û bejna neteweyên Îranê bi kinc û demamk a Farssîzmê bipeçivînin (veşêrin). Rejîm dixwaze bi hêceta yekîtiya netewî û pêşgîrî ji parvebûna Îranê bigihîje merem û armancên qirêj û mirar yên xwe û berevajî xwasta neteweyên Îranê wan li jêr yek ala, yek ziman, yek çand û neteweyek yekdest de bihelîne. Her terze xebat û tekoşînek jî ji aliyê neteweyên bindest bo bidestveanîna mafên rewa û berheq yên xwe yan pêşgîrî ji wan merem û kiryarên mirar yên wan bi tawan û guneha cudaxwaziyê tên mehkûm û tepeserkirinê. Helwest û kiryarek ku bi salan e di Îranê de meşiyaye û dom dike.

Bi vî awayî zulm û îxanetek mezin bi neteweyên Îranê û cinayetek mezintir jî bi karwanê şaristaniyeta mirov û xezîneya çanda cîhanê kirine. Serbarê wan hemû zext û givaşane jî gelên bindest yên Îranê bi taybet gelê Kurd karîne heya vê gavê jî ziman û çanda xwe biparêzin û jê xwedî derkevin û weke çiyayek qahîm li hember vê stratejiya rejîmê de rawestiyane û çepera xebat li dijî rejîmê xurttir kirine. Bi xweşî ve niha em dibînin ku pirsa neteweyî jî pitir ji her demekê bi taybetî di Îranê de girîngî peyda kiriye û asta hişyariya neteweyên Îranê çûye jor. Îdî dema qedexe û astengkirina peyvan bi ser çûye, ji ber ku divêt asteng û sînorên ser rêya wan berbendan bihên hilgirtin.

Di encam de Komara Îslamî çi din nikare dirêjî bi îdeolojiya hişk û berteng û vê siyaseta nejadperest û şovenîstane ya xwe bide û înkara pirzimanî û pirçandî ya gelên Îranê bike û li hemberî wan de xemsar be. Divêt rejîm rê û delîveya xwendin û geşandina zimanê zikmakî û îmkanatên perwerdeyiyên hewce bo wan misoger bike û wan bi fermî nas bike û dawî bi vê hizr û îdeolojiya paremayî û sedsala navîn ya xwe bîne heya ku hemû gelên Îranê bê tirs û cudahî bikarin di bin çetra edalet û yasayê de ji mafên wekhev bi mifah bin.

Lê lênihêrînek bi derbasbûyî, kakil û ew siyaset û îdeolojiya nateba û dijî mirovî ya Komara Îslamî, rejîm nikare bersivderê xwast û daxwazên gelên bindest û mafxwaz yên Îranê be û divê were hilweşandin. Lewra take rê û alternatîva ku bikare garantiya misogerbûna maf û azadiya gelên ne Fars di Îranê de bike û yasa û edalet têde bibe serwer û gelên Îranê di etmosferek aram û bêtirs de bikarin geşe û vejandinê bi çand û ziman û kultura xwe bidin, avakirina sîstemeke demokratîk û federal di Îranê de ye.

# Arîşeyên Nû Di Navbera Dewlet Û Arteşa Turkiyê De

**Azad Kurdî**

Sîstema rêvebirina desthilatê li Turkiyê bi awayekê ye ku pir caran di navbera du desthilatên dewleta fermî û Arteşê de wekî hêza veşartî û nepenî, dijberî li dor pirsên hundirîn û derveyî tê holê. Serbarê vê çendê ku bi awayekî qanûnî û fermî dewleta hilbijartî û kabîneya wê berpirsê bi rêvebirina welatê Turkiyê ye, lê di rastî de di destpêka avabûna Komara Turkiyê de, yanî 80 salên borî zêdetir e ku leşkerî yan Arteşiyên Turkiyê weke desthilata sîberê bandor û zêrevaniya bêrade bi ser kar û barên hundir û derveyî ên wî welatî de dikin.






Ev dijberî û nakokiyene di heyamê heftî û rojên derbasbûyî de zêdetir derketin rojeva siyasî ya Turkiyê. Helwest û gotinên Receb Teyîb Erdoxan, Serok Wezîrê Turkiyê, derbarê hewcehiya têkilî û hevdîtinan tevî berpirsiyarên Hikûmeta Azad ya Kurdistanê li pey vegeriyana xwe ji sefera Turkmenistanê, Arteşiyên wî welatî berbirûyê dewletê kirin û li hember gotinên wî bi xurtî dijkiryar ji xwe nîşan dan.

Erdoxan got ku dixwaze têkiliyên baş yên dîplomasiyê bi Hikûmeta Herêma Kurdistanê re ava bike ku bû sedema nigeranî û nerazîbûna berfireh ya Generalên Arteşa Turkiyê û dijberiya xwe ya tund tevî vê peyama Serok Wezîr dan xuyakirin. Teyib Erdoxan, qala vê çendê dike ku hevdîtinên bi Kurdan re dikare encamên baş hebin û ew amade ne ku tevî berpirsyarên Hikûmeta Azad ya Kurdistanê danûstandin û gotûbêjên fermî pêk bînin.

Berevajî helwesta Generalên Arteşê, ev gotinên Serok Wezîrê Turkiyê tevî pêşwaziya germ ya rayedarên Hikûmeta Herêma Kurdistanê rû bi rû bûn.

Serok Erkanê Arteşa Turkiyê, General Yaşar Buyukanit ku heftiya borî seredana Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê kir bû û tevî berpirsyarên bilind yên Amerîkayê civiyabû, li wir jî diyar kirbû ku rayedarên dewleta Azad ya Kurdistanê piştgiriya Kurdên Turkiyê û herwiha hêzên PKK'ê dikin û li dijî gotinên Erdoxan rawestiya û got ku ev gotin û helwestên Erdoxan li dijî berjewendiyên Turkiyê ne. Ev pêvajoye ji nigeraniyên tund yên Arteşiyan û rayedarên nejadperest yên Turkiyê bona berbipêşdeçûna doza Kurd û xurtbûna Hikûmeta Herêma Kurdistana Îraqê û tirs ji teşenekirina wê rewşê ji bo Kurdistana Turkiyê çavkanî digire.

Di helwestek cuda û dijberî Arteşiyan de, Ebdula Gul, Wezîrê Karê Derve yê Turkiyê eşkere kir û got: "Ya baş eva ye ku Arteşî mijûlê erk û wezîfeyên xwe bibin û rêyê bidin ku siyasetvan kar û barên siyasî bimeşînin. Ew mijarên ku divêt Arteşî li ser wan biaxivin, cuda ne û herwiha cihê axavtina wan jî bi ferq e û ewa karê dîplomat û siyasetvanan e, ne Arteşiyan".

Ev helwest û dijkiryarên hemberî hev, bi kiryar Turkiye bi du eniyên **alîgirên dewletê** û **alîgirên Arteşê** parve dike, bi awayekê ku Serok Komarê wî welatî tagirî ji gotin û helwesta Arteşiyan kir!

Arteşa Turkiyê û gelek ji hêzên nejadperest yên wî welatî tevî her cure têkiliyekê bi hikûmeta Federal ya Kurdistanê re dijberiyê dikin û kirine û ev yek wekî **hêla sor ya Ankarayê** bi nav kirine. Heyameke zaf e ku ji aliyê karbidestên Turkiyê derheq diyarîkirina çarenivîsa bajarê Kerkûkê di dawiya sala 2007'an û bi mihana hebûna hêzên PKK'ê li Kurdistana Îraqê û xurtbûna dewleta Kurdistanê, gef û êrîşên berfireh tên kirin û pir konferans û civînên nepenî û eşkere di vê derbarê de pêk anîne. Heta kar gihîşte cihekê ku heyamekê berî niha Generalên Arteşa Turkiyê daxwaza êrîşê bo ser axa Kurdistanê kirin.

Yaşar Buyukanit di hevdîtinên xwe de li Amerîkayê, helwesta Arteşiyên Turkiyeyê derheq wan pirsên ku me li jor basa wan kir, ji rayedarên Amerîkayê re ragihandibû, lê di axavtinên piştî vegeriyana xwe ji Amerîkayê, wisa xuya bû ku ew jî weke Ebdula Gul, seba van pirsan destvala û bêdestkevt ji Amerîkayê vegeriya ye û berpirsiyarên Amerîkî bal nedane gotin û daxwaziyên wan!

Hilbijartinên îsal li Turkiyê dê pêşeroja van dijberî û nakokî û pirsgirêkên navbera van her du desthilat û aliyên Turkiyê dê diyarî bike. Bêguman serkevtina tundrewên nejadperest û şovenîst yên Turk dê vê rewşa nû ya navbera dewleta Turkiyê û Arteşa wî welatî dê tundtir û aloztir bike. Ev rewş di qazanc û berjewendiya tu aliyekê de nabe û ewlehiya siyasî ya herêmê dê ji nav bibe û pêrsgirêkan biafirîne. Ji ber ku ew aliyên Turk bi micidî û xurtî dijberiyê tevî pirsgirêka Kurd bi giştî û nemaze destkevtên neteweya Kurd li Kurdistana Başûr dikin.

Lê renge serkevtina Partiya Edalet û Pêşketinê di hilbijartinan de ku Receb Teyîb Erdoxan rêberiya wê dike, bi van helwestên nerm ên vê dawiyê, alîkariyê bi pêkhatina pêwendiyan di navbera wan û dewleta Kurdistana Azad ya Îraqê bike. Bêşik heke ew helwest û gotin ji hêla rayedarên dewleta Turk bihên meşandin, dê bandoreke rasterast li ser çareserkirina demokratîk û hemdem ya pirsa Kurd li Turkiyê û welatên cîran bike. Ev jî bi vê çendê ve girêdayî ye ku partiya han van helwestên xwe xurt û berfirehtir bike û li hember helwesta tundrew ya Generalên Arteşê û hêzên nejadperest teslîm nebe.

## Di Bûyereke Dilêşîn De Endamekî PDK Îranê Jiyana Xwe Ji Dest Da

Li gor ragihandina Komîteya PDK Îranê li welatê Norwejê, endamê PDK Îranê yê bi navê **Bextiyar Welezî** naskirî bi Alan, roja şemî, 28.11.1385(17.02.2007)'an, bi sedema lihevdana otombêlan jiyana xwe ji dest da û çû nava refên karwanê Şehîdên gel.

Bextiyarê nemir, tevî 3 endamên din ê PDK Îranê ji bo beşdarî di cîvîneke Komîteya PDK Îranê, li bajarê Bêrgenê ve bo bajarê Osloyê birê ketibû ku mixabin bi hegera lihevdana otombêlan jiyana xwe ji dest da û 3 hevalên wî yên din jî birîndar bûn.

Şehîd Bextiyar, endamekî çalak yê Komîteya PDK Îranê ya bajarê Bêrgenê bû ku nêzî bi deh salan bû li derveyî welat ji bilî birêvebirina erkê partiyê, xwendina xwe jî didomand û îsal sala dawiyê ya xwendina devrana doktoraya wî bû.



Bi vê hincetê, em bi ser navê malbata weşanê ya Agirî, serxweşiya xwe pêşkêşî malbat û kes û karên **Şehîd Bextiyar** dikin û xwe di xem û taliya wan de bi şirîk dizanin.

Rêya wî pir rêvîng û riha wî jî bi bihişta berîn şad be.

# HEMAN NAV Û EXLAQÊ SIYASÎ



**Lokman Polat**

Nexweşiyên ku di salên 70 û 80-yî de di nav partî û rêxistinên bakurê Kurdistanê de hebû, niha di nav PDKÎ de rû daye. Gruba ku ji PDKÎ veqetiyaye heman navî bi kar tîne û ev tişteke nebaş e, ne exlaqî ye, ne sîyasî ye. Çewtiyên weha berê li bakurê Kurdistanê hatin kirin û tu feydeyeke neda doza netewa kurd û herweha tu feydeyeke neda tevgera siyasî ya kurd.

Li tevahiya cîhanê pîvan û exlaqê siyasî heye. Divê siyasetvanên kurd jî li gorê pîvanên siyasî û exlaqî tevbigerin. Nabe ku siyasetmedarekî li gor keyfa dilê xwe hiqûq û exlaqê siyasî binpê bike. Di siyasetê de hinek tişt têne kirin ku ne li gorê exlaq û hiqûqa siyasî ne. Di nav sî salan de tevgera kurd ya bakurê Kurdistanê ji ber nekemilandîbû, bi xeşîmî û zarokî gelek şaşiyan kirin. Niha hinek kurdên siyasî yên rojhilatê Kurdistanê şaşiyên ku hatine kirin, dubare dikin.

Hinek kes ji partiyeke veqetin, nabe ku navê wê partiyê bikar bînin û herweha nabe ku heman navê organa partiyê bi kar bînin. Ma nav qeteh bû. Heger dixwazin bibine partî bila naveke nû li partiya xwe daynin. Di salên berê de tevgera siyasî ya kurdên bakur şaşiya bi karanîna heman nav pêkanî û tu feydeyeke jê nedît. Ew dem bi navê "Armanc" du kovar, bi navê "Xebat" du kovar derdiketin. Kurdên binxetê herweha bi heman navî du kovar derdixistin. Navê partiyeke du gruban bikar dinanî. Ev jî bi xwe re keşmekeşî, bêserûberê, bêbawerî û nakokî derdixist holê.

Dema ez pê hesiyam ku Kek Hesenzade û hevalên xwe navê PDKÎ û navê organa wê "Kurdistan" bi kar tînin, ez li ber ketim. Sekretê PDK-Î yê ku ji hêla pîvanên exlaqê siyasî û hiqûqî meşru ye anku Kek Mistefa Hicrî di beyana xwe de dibêje : "Rojnameya KURDISTAN ku rojnameya me ye, wan navê wê danîne ser rojnameya xwe. Arma PDK Îranê ji xwe re hilgirtine. Di halekê de ew û gişt xelkê Kurdistanê baş dizanin ku ew PDK Îranê nînin. PDK Îranê ew partî ye ya ku niha di ciyê xwe de ye. Ew partiye ye ku rêberiya wê di kongireyeke demokratîk de hatiye hilbijartin. Ew partiye ye ku piraniya rêberiya wê û piraniya bedeneya partiyê tevî vê ye. Lewra nabe partiyeke eslî hebe, îca her girûpeke din cuda be, navê wê partiyê li ser xwe danê û xwe bi mafdar bizane û ên din jî neheq........ Ez hêvîdar im ku navê xwe biguherin."

Belê, ez jî weke kurdekî welatparêz, weke dostekî 30 salan yê PDKÎ, weke birayekî hemû kurdên rojhilat hêvî û daxwaz dikim ku gruba Kek Hesenzade di şaşiya xwe de îsrar nekin, û navê xwe bigehurînin. Heta dil dixwazê ku ew bi metoda xwerexneyî şaşiyên xwe qebûl bikin û vegerin nav refên partiyê.

Li gor pîvanên exlaqî, siyasî û hiqûqî, dema partiyek bibe ducî, di organa navendî – merkezî – central- de pîranî kîjan alî be, partî ew alî ye. Ji xwe heger çend kes ji ber sedemên şexsî û yan jî siyasî ji partiyekê veqetin, nabe ku navê wê partiyê bikar bînin. Kek Hesenzade û çend kes veqetiyane, heqê wan tune navê partiyê û navê organa –weşana navendî – ya partiyê bikar bînin.

Ez bi xwe gruba ku ji PDKÎ veqetiyane şaş dibînim û helwesta rêberiya PDKÎ rast dibînim. Divê kurdên rojhilat piştevaniya xwe ji PDK Îranê û rêberiya kongireya 13-ê ya partiyê re bidine ragihandin. Partiya serokên nenir Qazî Mihamed, Qasimlo û Şerefkendî bila qels nebe, hîn bêtir xurt bibe, bi hêz bibe.

# Gerek Kurt Di Dîrokê De ...

**Amadekar: Nûredîn Sofîzade**

**16.02.2006:** Tekst û arma "TISHKTV" kete ser şaşeya televîzyonê û ewa jî hêviya gelê Kurd li Kurdistana Îranê bû.
**17.02.1998:** Xatûna Mîna Qazî hevjîna Pêşewa Qazî Mihemed di temenê 90 saliyê de li bajarê Mehabadê koça dawiyê kir.
**18.02.2000:** Helbestvanê navdar yê Îranê, Nadir Nadirpûr, koça axiretê kir.
**18.02.2001:** Siyasetvanê naskirî û endamê Komîteya Navendî ya PDK'ê **Firanso Herîrî** li bajarê Hewlêrê de ji aliyê terorîstan ve kete ber destdirêjiyê û di encam de şehîd bû. Şehîd Firanso Herîrî di eslê xwe de Asurî bû û piraniya temenê xwe bona doza Kurd û Kurdistanê qetandibû.
**19.02.1979:** Dest bi ser de girtina Padigana Bajarê Mehabadê ji aliyê PDK Îranê û hevkariya arteşiyên şoreşvan û welatparêz.
**19.02.1980:** Pêkhatina kongireya 4'an ya PDK Îranê li bajarê Mehabadê de bi pişikdariya 310 kes ji nûneran. Piştî 34 salan eva yekemîn kongireya eşkere bû ku ji aliyê PDK Îranê dihate birêvebirinê.
**20.02.1980:** Destpêkirina şer li deverên bajarê Kamyaranê û êrîşa hêzên cinayetkar ên rejîma Komara Îslamî a Îranê bo ser piraniya deverên Kurdistanê ku piştre bû şer di gişt Kurdistanê de.
**20.02.2005:** Avabûna **Kongireya Neteweyên Îrana Federal**, ku tê de piraniya partî û rêxistinên nûner ên nateweyên Îranê beşdar bûn. Diyar e ev yeka bi cehd û tekoşîna çendîn salî ya PDK Îranê pêk hat.
**21.02.1947:** Lidarvekirina 12 kes ji xebatkarên PDK Îranê li bajarê Bokan û Seqizê de.
**21.02.1984:** Li navbera binkeyên "Girdeben" û "Gireziwe" a devera bajarê Şinoyê Pêşmergeyên PDK Îranê ji hêza Simko, ketne nava telika hêzên rejîmê û li encama şereke giran de mixabin 4 Pêşmerge bi navên: Xalid Îbrahîmî, Rehîm Semedpûr, Zirar Mamedî û Ehmed Ezîzî şahîd bûn.
**21.02.1984:** Hêzên rejîmî ji gişt aliyan ve êrîş kirine ser gundên "Gulolan" û "Tirsan" a devara bajarê Mehabadê û tevî berevaniya Pêşmergeyên PDK Îranê hember bûn. Piştî şereke giran ku têde 10 kes ji hêzên rejîmê hatne kuştin, mixabin 5 Pêşmergeyên PDK Îranê bi navên: Mihemed Mamrehîmî, Rehman Rengîn, Cefer Rengîn, Qadir Barane û Kekê Omîd şehîd bûn.
**21.02.1999:** Roja Cîhanê ya Zimanê Zikmakî.
**22.02.1991:** Nivîskar û helbestvanê navdar ê Kurd **Mamosta Hejar** koça dawiyê kir.
**22.02.1999:** Kuştina xwenîşandanên bajarên Kurdistana Îranê, weke Sine, Urmiye, Mehabad û ... ku pitir ji 20 kesan şehîd bûn û bi sedan kes hatne girtin û ketne girtîgehan.
**22.02.1922:** Welatê Misr ku heya wê demê di bin destê welatê Firansayê de bû, karî serxwebûna xwe bidestve bîne û bibe dewlet.
**23.02.1918:** Simkoyê Şikak rêberê Asûriyan anku Marşîmon kuşt. Bi vî terzî şereke giran di navbera Asûrî û Kurdan ve li herêma bajarê Urmiyê pêk hat û piştî wê demê Asûriyan weke neyar çav ji Kurdan dikirin.
**24.02.1923:** Simkoyê Şikak tevî 400 siwarên xwe gihîşte bajarê Silêmaniyê û ji aliyê Şêx Mehmûd ve bi germî hate pêşwazîkirinê. Egera çûna Simko bo bajarê Silêmaniyê dîtin û pêkanîna pêwendiyan tevî Îngilîziyan li Bexdayê bû.
**27.02.1980:** Piştî wê ku kongireya 4'an a PDK Îranê nameyek ji bo Benîsedir, Serok Komarê Îslamî yê wê demê yê Îranê şand û daxwaza hevdîtinekê tevî şanda PDK Îranê li ser doza Kurd kiribû, piştî qebûlkirina vê daxwazê şandek ji aliyê PDK Îranê ku pêkhatibûn ji Xenî Bilûriyan, Ebdula Hesenzade, Fevziye Qazî, Nevîd Moînî û Ehmed Qazî ber bi Tehranê ve rêketin û tevî Benîsedir rûniştin pêk anîn. Di vê hevdîtinê de Daryûş Firûher, Haşim Sebaxiyan û Îzetulah Sehabî jî pişikdar bûn. Ev rûniştine bê encam ma.
**28.02.1983:** Hêzên cinayetka yên rejîma Îranê li dirêjahiya cinayetên xwe de êrîş kirine ser 5 gundên derdora bajarê Nexedê û xelkê sivîl xistin ber destdirêjiya guleyan û mixabin di encama vê kiryara hovane ya rejîma Îranê de pitir ji 40 kesên bêguneh di wan 5 gundan de hatne kuştin.

# Rewşa Zarokan Li Îranê De

**Amadekar: Hemîd Muxtarî**

Ez dixwazim berê ku balê bikişînim ser rewşa zarokên Îranê, îşareyekê bi çend madeyên girîng ên Peymananameya Cihanî a Mafê Zarokan bikim.

Peymananameya Cihanî a Mafê Zarokan, peymannameyeke navnetewî ye ku ji bo berevanîkirin ji mafê zarokan di sala 1989'an a zayînî de hate pejirandin û di sala 1990'an de hate birêvebirin. Niha jî di nava 193 welatên cihanê de, 191 welat endamê vê Peymannameyê ne ku yek ji wan welatan welatê Îranê ye.

Ev peymannameye ji destpek û 54 madeyan pêk hatiye ku emê li vir de îşare bi çend madeyên wê yên girîng bikin.

**Madeya 15**

**Man û Pêşkevtin**: Her zarokek xwediyê mafê xwezayî yê jiyanê ye û divêt dewlet jiyan, man û pêşkevtina zarokan garantî bike.

**Madeya 24**

**Xizmetên Saxlemiyê**: Mafê zarokan e ku bibin xwediyê radeya herî bilind ya saxlemiyê û xizmetên nûjdariyê. Gereke dewlet baleke taybetî bidin xurtkirin, parastin û hînkirinên giştî yên saxlemiyê.

**Madeya 27**

**Radeya Jiyanê**: Her zarokekê mafê jiyaneke wiha heye ku di warê cendekî, hiş, hundirî û civakî de geşê bistîne.

**Madeya 28**

**Hînkirin û Perwerde**: Perwerdehî û înkirin mafê her zarokekê ye û divêt dewlet îmkana perwerdehiya destpêkî ya belaş û bi zorî bo hemûyan misoger bike.

**Madeya 29**

**Hînkirina buhagiraniyan**: Armanc ji hînkirin û perwerdehiyê divêt geşekirina kesayetiyê û şiyanên zarokan bi awayê herî baş be û zarokan bo jiyaneke çalak di civakê de berhev bike.

**Madeya 30**

**Zarokên kêmaniyên neteweyî û mesebî**: Zarokên kemaniyên neteweyî û mesebî mafê vê çendê hene ku bibin xwediyê çanda xwe, karên mesebî ên xwe bicî bînin û bi zimanê xwe biaxivin.

**Madeyas 33**

**Mewada muxedir (sirker)**: Zarok divêt li hember mifahwergirtin ji madeyên hişber (sirker) û beşdarî di çêkirin û belavkirina wê de werin parastin.

**Madeya 37**

**Qedexekirina îşkencê**: Tu zarokek nabe bikeve bin îşkenceyê, riftarên zalimane û girtinên neyasayî. Dasepandina cezayên îdamê û hepsa hertimî divêt derheq zarokan de nemîne û bihê hilgirtin û zaf madeyên din ku em li vir nikarin îşarê bi hemûyan bikin.

Li vir pirsiyarek tê holê: Erê gelo rejima Îranê jî ku ev peymannameye îmza kiriye tu gaveke erînî derheq birêvebirina madeyên vê peymannameyê avêtiye?! Ger birêve nabe, çima bûye endam?!!

Bersiv rohn û eşkere ye, divêt were gotin ku rûçik û hundirê rejîma Komara Îslamî a Îranê tevî hev gelek ferq û cudahî hene, rejîm bi îmzakirina vê paymannameyê dixwaze bi terzekê xwe bi cîhanê bide nasandin ku rejîmeke gelî ye û xwe li hember gişt nifûsa Îranê berpirs dizane. Lê di rastî de pejirandin û birêvebirin du tiştên ji hev cuda ne. Ev siyasete li mêjdeme ku rejima Îranê bo xapandina raya giştî a cihanê birêvê dibe û di vê pêwendiyê de gelek mînakên din jî hene ku rejîma Îranê di nava yasaya bingehîn a xwe de cî kirîne bo mînak.

Esla 15'an ya yasaya bingehîn a rejîmê derheq hebûna heqê xwendin û nivîsandinê bi zimanê zigmakî bo hemû gelên Îranê, lê piştî derbazbûna pitir ji 28 salan heya niha jî neketiye qonaxa cîbicîkirinê. Yan esla 19'an ku wekhevbûna hemê gelên Îranê bê liberçavgirtina nejad, reng, ziman, ol û...hwd, qebûl kiriye. Lê heke me lênihîrênek li ser ji rewşa aborî, siyasî û civakî ya neteweyên Îranê, bixasmanî neteweya kurd hebe, mere eyan dibe ku rejîm di vî warî de heya çi qasekê xwe bi berpirs zaniye. Yan esla 23'an ku têde pêşgirtin ji eyankirina bîr û rayan mehkûm dike û dibêje hemû kes dikare bi azadî bîr û rayên xwe eyan bike û nabe tu kesekê seba vê yekê bixine bin zext û givaşan.

Lê bi rastî di kiryar de ev yeka jî cî bi cî kiriye?! Ger wisan e çima rejîma Îranê her salê ji aliyê rexistinên navneteweyî û saziyên "NGO" ve weke yekemîn welatê tepeserkar di warê bergirtin ji azadiya bîr û rayan tê hesibandin û mehkûm kirin.



Rejîma Îranê her weke mînakên sere ku me îşare pêkir serbarê vê çendê ku derheq soz û peymanên xwe li hember liberçavgirtina mafê zarokan dirûşman dide, lê di kiryar de daliqandina keç û xortên biçûk û jêr 18 saliyê bi awayekî berfireh birêve dibe ku vê yekê bi awayeke rasterast tevî madeya 37'an a Peymannameya Cîhanî ya Mafê Zarokan dijberî heye.

Ger em lênihêrînekê li ser rewşa gişt xelkê û bi xasmanî zarokan di Îranê de li gor wan serhijmariyên ku ji aliyê saziyên girêdayî bi rejîmê yan li gor gotinên berpirsên rejîmê bikin, berpirsiyariya rejîmê li hember xelkê Îranê ji me re eyan dibe! Bo mînak li gor nûçegehaniya "Kar" ya Îranê, birêveberê giştî yê deftera jêrdeanîna xizanî û siyasetên qerebû kirinê a Wezareta Rifah (Rahetiyê), ragihand: "Li gor serhijmêriyan pitir ji 12 milyon ji xelkê Îranê di belengaziyeke tevav de dijîn".

Li gor gotinên birêz Emînî, belengaziya xurt û kesên ku ji destê birçîbûnê dinalin, pitir ji yek milyon kesan e. Wî sedema bingehîn ya belengaziyê di Îranê de nebûna xwendewarî û herwiha nebûna piştewaniyê ji kesên destkurt zanî.

Herwiha yek ji alîkarên civakî û endama zanistî ya zanîngehê bi navê Dr. "Xunçe Rahib" di hevpeyvînekê de tevî Nûçegehanê Xwendekarên Îranê (ISNA)'ê de dibêje: "%80 ji zarokên ser şeqaman ên Îranê zarokên karî ne û heke dest ji karê xwe berdin, dê malbata wan tevî pirsgirêkên zaf di warê miaş de berbirû bin, lewma komkirin û ji navbirina karê zarokên ser şeqaman nikare pirsgirêkên wan çareser bike". Wê herwiha got ku piraniya zarokên ser şeqaman di parêzgehên Xurasan, Tehran, Loristan û Kurdistanê de ne. Navhatî sedema pêkhatina vê diyardeyê di Îrane de vedigerîne bo zêdebûn û guhertinên bê rêje yên nifûsa Îranê, kavilbûn û xirabiyên bi cî mayî ji şer, feqra çandî, koçkirin, bêkarî, zêdebûna astê telakê, Îtiyad, hebûna karên nerast û ne yasayî di Îranê de.

Herwiha li ser rewşa saxlemiya zarokên serşeqaman di Îranê de Koma Civakî a ser bi Nûçegehaniya Xwendekarên Îranê (ISNA)'ê, lêkolînek li ser 4133 kes ji zarokên ser şeqaman kiriye ku di vê lêkolînê de %73 ji zarokan tûşî nexweşiyên çav, %61 nexweşiyên bêhn tengiyê, %64 tûşî nexweşiyên dil,%69'ê wan pirsgirikên bihîstinê û %61 ji kêmasiya baldanê dinalin û %82 jî tûşî nexweşiyên çerm hatine. Di warê xwendewariyê de jî %56 nexwendewar,%61 bi başî nikarin biaxivin û bi giştî %86 ji wan ne xwediyê pisporiyê di warê kar de ne. Ev serhijmêriye eyankerê rewşa nebaş a zarokan di Îranê de ye.

Gişt xwedî hizr di vê pêwendiyê de li ser vê baweriyê ne ku ji bo kêmkirin û jinavbirina vê diyardeyê hewce ye ku rews û zirûfek were pêkanîn ku zarokên ser şeqaman him bikarin di ciheke paqij û salim de kar bikin û him ji xwendina xwe bidomînin. Di vê navberê de divêt damezirandina kargehên jêhatî û perwerdehiya pisporiyê a zarokan di rêza yekemîn de be ku pêkanîna wan derfet û delîvane tenê ji dest dewleteke berpirsyar tê encam dan û rejîma Komara Îslamî a Îranê ne xwediyê vê taybetmendiyê ye.

Email: agiri_kurd@yahoo.com

Jêder:

1:Yasaya Bingehîn ya rejîma Komara Îslamî a Îranê.

**Komkirin: Şehram Soltanî Lorganî**

2: Rojnameya Agirî hejmar 27,29,30.

3. Malpera www.roshangari.net – www.radiobalochi.org.

# Daxuyaniya Komek Ji Çalakên Medenî Û Alîgirên Mafên Mirovan Li Kurdistanê Derheq Pirsgirêka Mayînan

Teqîna mayînan û telikên mayînan ên bicîmayî ji dema şerê Îran û Îraqê, yek ji pirs û kirîzên îroyîn ên civaka me ye ku zêdebarê derbazbûna 18 salan bi ser şerê Îran û Îraqê heya niha jî hevwelatiyên parêzgehên Kurdakincî tevî wê arîşê berbirû ne.

Derbazbûna mideheke zaf li ser çandina mayînan û herwisan rewşa cuxrafiyayî û rewşa av û hevayê Kurdistanê, ku bi giştî bûye sebebê cî bi cî bûn û li ser ciyê xwe nemana mayînan, pirsgirêk du qat berfirehtir kiriye ku hewcehiya giringîpêdaneke zêdetir û bingehîn ji aliyê berpirsan ra dixwaze.

Ji aliyekê hebûna bi milyonan mayînên çandî di herêma parêzgehên Kurdistanê de bûye sebebê kêmbûna astê ewlehiya jiyan, ruhî û aborî a xelkê Kurdistanê û ji aliyeke din ve seba ji nav neçûn û giringî nedana dewletê bi mayînên çandî, zêdebarê pêkhatina pirsgirêkên zaf ên jîngehê, weke belgeyeke rastîn ya binpêkirina mafê hevwelatiyan tê hesibandinê.

Li gor serhejmariya weşandî ji aliyê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, 16, 000, 000 mayînên çandî di Îranê de hene û bi awayekî navincî goriyên mayînan di her rojekê de 2/2 e ku bêşik pitir ji %70 ya vê serhejmariyê girêdayî bi herêmên Kurdakincî ye, bi awayekê ku jiyana sedan kesan jê standiye û bi hezaran kesan jî endamên laşê/a xwe bi vê egerê ji dest dane.



Eva di halekê de ye ku li gor yasaya bingehîn a rejîmê, berpirsiyariya parastina can û malê hevwelatiyan bi awayekî rasterast li stûyê hikûmetê û serveyî hemûyan li stûyê dewleta Îranê ye. Lê zêdebarê eyankirina nerazîbûnê ji aliyê hevwelatiyan û saziyên sivîl û parêzvanên mafê mirovan, heya niha jî ne tenê tu gaveke erênî di vê derheqê de nehatiye avêtin, belku gelek ji kiryar û bernameyên ragehandî û pejirandî ji aliyê dewleta Îranê ve di çarçoveya leyîstinên siyasî û jêstên siyasî ên berpirsan di astê dirûşman de maye, eva di halekê de ye ku ev dijminê veşartî anku mayîn her rojê û her demê canê hevwelatiyekê digire yan dest û pêyê mirovan jê vedike.

Seba vê yekê, em weke komek ji çalakên medenî û berevankarên mafên mirovan bi îmzakirina vê daxuyaniyê daxwazê ji berpirsên dewleta Îranê dikin ku bona ji navbirin û paqijkirina meydanên mayînan gavên erênî bavêjin û ji bo serkevtin di vê pirosesê de, em xalên jêrîn bi hewce dizanin û daxwazkarê cî bi cîkirina van xalane in.

1. Pêkanîna komîteyeke taybet û pispor derheq çareserkirina pirsgirêka mezin ya meydanên mayînan li parêzgehên Azerbaycana Rojava, Îlam, Kirmaşan û Kurdistanê.

2. Pejirandin û diyarîkirina budceyeke baş bona çareserkirina pirsgirêka han.

3. Venasîna herêmên mayînrêjkirî û hewcehiya danana tabloyan û agehdarkirina hevwelatiyan ji rêyên pêwîst.

4. Encamdana bilez derheq komkirin û paqijkirina herêmên mayînrêjkirî û telikên mayînan, bi xasmanî li herêmên jiyanê, nemaze ev binkeyên leşkerî ên valabûyî.

5. Dayîna îcazenameyan bi awayekî bilez ji bo avakirina saziyên nedewletî ên çeleng derheq pirsgirêka mayînê û herwisa cî bi cî kirina kereseyên hewce ji bo kesên ku bi dilxwaz daxwaza hevkariyê di vê pêwendiyê de di çarçoveya civat û saziyên nedewletî dikin.

6. Hewce ye dewlet ji bo pêşîgirtin ji cî bi cîbûna mayînên çandî û serevjêr bûna wan bo herêmên akincîbûnê, çêrîngeh, rê, erd û zeviyên cotkariyê, bi pirojeyên weke çêkirina nîşaneyên destçêkirî û kanalkişandinê, gavan hilgirin û di vê derheqê de bernameyên bingehîn birêve bibe.

7. Hewce ye ku pêragehîştin û girîngiyeke taybet bidin bo kesên ku dibine goriyê wan mayînên çandî ku piraniya wan bi egera ketine ser mayînê şiyana karkirinê tuninin û hewcehî bi piştevaniya aborî hene û pêwîst e ku hemû binkeyên berpirs di vê derheqê de destê wan bigirin.

8. Bi giringîdan bi vê yekê ku zaf herêmên Îranê ji herêmên şer û ne şer bi dirêjahiya salên borî hatine mayînrêjkirin û herwisa ji bo pêşgirtin û paqijkirina wan meydanên mayînan pêwîstî bi bûdceyek zaf heye, lewra em daxwazê ji rejîma Komara Îslamî ya Îranê dikin ku tevlî welatên endam di Peymannameya Navneteweyî ya "Otawa"ê bibe û bi wan re alîkariyê bike.

**17.02.2007**

**Navê îmzakerên daxuyaniyê:**

**1. Mihemedsidîq Kebûdvend, 2. Îclal Qewamî, 3. Omîd Bêygîzade, 4. Saman Resûlpûr, 5. Zeyneb Bayezîdî, 6. Celal Hacîzade, 7. Rehmet Şexsî, 8. Keywan Ferehmendî, 9. Şehabedîn Şêxî, 10. Qasim Ehmedî, 11. Seîd Saêdî, 12. Qehreman Kerîmî, 13. Fuad Senetî, 14. Behram Weledbêygî, 15. Husên Ehmedî, 16. Hoşeng Mihemedî, 17. Toniya Kebûdvend, 18. Elî Bijefer, 19. Seyêd Hidayet Haşimî, 20. Mihemed Dawer, 21. Îsmaîl Canî, 22. Xalend Mehmûdiyan, 23. Mesûd Bînendê, 24. Bêhzad Xoşhalî, 25. Emîn Surxabî, 26. Emîr Ebdulahî, 27. Omîd Ehmedzade, 28. Mistefa Ehmedzade, 29. Tahir Xedîw, 30. Fuad Lutfîfer, 31. Yûnis Qurbanîfer, 32. Awat Barîkiyan, 33. Sîrwan Sedî, 34. Îbrahîm Qurbanî, 35. Hamid Çavşînî, 36. Dr. Fireydûn Nûrî, 37. Elî Rezaxanî, 38. Kiyûmers Xizlî, 39. Hesen Ezîzî, 40. Rehîm Wahidî, 41. Ebdula Dilşad, 42. Hesen Selahsoran, 43. Cemşîd Mizeferî, 44. Mistefa Sawe, 45. Fazil Weliyan, 46. Hidayet Weliyan, 47. Esedula Mihemedî, 48. Azad Hacîaqayî, 49. Ferheng Soltanî, 50. Mihemed Kemanger, 51. Selahedîn Xedîw, 52. Selah Çelbiyanî, 53. Sedûn Mazoçî, 54. Ebdulezîz Mulûdî, 55. Şefî Behramiyan, 56. Mulûd Behramiyan, 57. Ezîz Îbrahîmî, 58. Hamid Ferazî, 59. Moslêh Tohîdî, 60. Xosrew Kurdpûr, 61. Mesûd Kurdpûr, 62. Dr. Hesen Şêxaqayî, 63. Mehmûd Pidram, 64. Mihemed Şêrko Hesenpûr, 65. Mihemed Bayezîdî.**

## Agehdarî!

**Xwendevanên hêja!:**

Di çend hejmarên berê yên Agirî de, me nivîsarek li jêr navê "cudabûnên nava refên PDK Îranê de, sedem û encamên wan" weşand, mixabin ji ber hinek sedeman em nikarin du beşên mayî yên nivîsarê biweşînin. Li me biborin. Lê hûn dikarin li ser malpera me beşên mayî yên gotara han bixwînin.

**Rêz û hurmet**

**Desteya Weşan ya Agirî**

# Îbrahîm Newrozî Naskirî Bi Birê Stiranbêjê Bi Nav Û Deng Yê Serhedê

Mihemedsalih Qadirî

Ger em bi çavekî vekirî bera xwe bidene vê rastiyê ku piraniya stiran û stiranbêjên navdar ên Kurdan ji hêla Serhedê we serhildane, vê bo me eyan bibe ku sebeba vê yekê vedigere bo wan bûyer û oxirmeyên ku li devera Serheda Kurdistanê de bi serê Kurdan ve hatine. Eva jî bûye sedema vê hindê ku jin û mêrên bi hest yên Kurd ên vê deverê wan serpêhatiyan bi dengê zelal ê xwe bilorînin û bi stiranên xwe kul û keserên jiyana zordestiyê birêjin û dilê birîndar ji derbên




Kêla Nemir Hunermend Birê

dijminan û hês û agirê hunera xwe pê hênik bikin. Lewra em dikarin bibêjin stiran ji bo Kurdên Serhedê bûye heval, hevxem û penageha tenahiyê. Bi gotineke din serca riha stiranbêjiya Kurdî li mêj ve ye li dayîk bûye.

Mînaka wan stiranbêjên naskirî yên Serhedê wek: **Tahro**, **Şekro**, **Reso**, **Sidîqo**, **Hacî Ebdulkerîm**, **Şeroyê Biro**, **Birê**, **Qado**, ... ku bi xasmaniya dengbêjiya xwe bûne xweşteviyê xelkê Kurdistanê û neynûka bejn xuya ya êş û janên gel dane ber çavê her guhdarekê.

Îbrahîm Newrozî (Birê) kurê Mistê ji malbateke welatparêz û naskirî yê Kurdistana Îranê ye. Mistê babê Birê yek ji wan serkirde û egîd û jêhatiyê serdemê şoreşa Cever Axa û Îsmaîl Axayê Şikak bû. Mistê ev kese bû ku tevî Cever Axa çû bo Tevrêzê û piştî şehîdkirina namirovane ya Cever Axa bi destê kesên nenaskirî, wî karî tevî 6 hevalên xwe bi berxwedaniyeke qehremanane, xwe ji pîlana dijmin rizgar bikin û vegerine Kela Çehrîqê.

Birê sala 1307 (1928)’an li gundê Bawan ya Somayê ji dayîk bû, di temenê 10 saliyê de bûye hogirê helbest û lavjegotin û ji vê demê ve heya sala 1378 (1999)’an, sala ku di temenê 71 saliyê de çû ber dilovaniya Xudê, berdewamî da karê hunerî û xebat bo rizgariya welat.

Deng û stiranên **Birê** li dûr ve bêhn û dengê Kurdîniyê jê tên. Dema ku kilamên serpêhatî û belengaziya Kurda dilorîne, her guhdarekê dixe ber bandoreke kûr û mirov dibe bo şax û dema berê û bab û kalên me tîne bîra me.

Xasmaniya kilambêjiya Birê ku çi peyv ya meqamên biyanî tevlî stiranên xwe nekirine û ev hemû stiranên xwe bi çand, folklor û zimanê zelal û esîl yê Kurdî darêtine. Wî peyvên Kurdî bi zelalî û fesîhî bê ser û pê birîn di kilamên xwe de stirandiye, lewra dibînin ku stiranên Birê xwediyê xasmaniya xwe ne. Stiranên Birê bas ji belengazî, xerîbî, egîdî, evîndarê bedevê û xweziya Kurd û Kurdistanê dikin.

Deng û lavjê Birê wekî kilîdekê bûn ku zimanê şîrîn û qedexekirî yê Kurdî pê dihate vekirin. Lavjên Birê bi qasekî bandor li ser mirov didanê ku ger mirov çiqas jî newêrek ba, bi bihîstina lavjên şoreşgerî yên Birê mirov dilêr dibû. Yan mirovên pîr bi bihîhîstina lavjên evîndariyê wek xortên 14 salî lêdihatin. Lewra em dikarin bêjin ku Birê di çaxê xwe de wek stêrekî geş yê kilambêjiya Kurdî hatiye naskirin.

Ji ber ku lavjên Birê wek dîroka nenivîsî, dikarin gelek bûyer û serpêhatiyên mezin yê jiyan û dîroka gelê Kurd bidene eyankirin.

Her lavjeyeke Birê wek gul û rihanekê ye ku sîng û berê çiya û çol û newalên Kurdistanê pê dixemlînin û evîndarên dengê wî pê dilgerm û serxweş dibin. Birê di jiyana hunerî ya xwe de zêdetir ji 400 lavje stiriye ku piraniya wan bê muzîk hatine gotin.

Birê çend salan di **Radyoya Kurdî ya Urmiyê** de lavje gotine, lê piştî gotina lavja **Îran e xweş Îran e** ku sînorê Kurdistanê diyarî kiriye ji radyoyê hatiye derêxistin û bo heyamê 5 salan ketiye girtîgehê û hatiye binçavkirinê.

Her çend ku Birê bi sebeba jiyana bindestiyê nekarî hemû êş û janên gelê



Hunermend Îbrahîm Newrozî (Birê)

Kurd wekî hisreteke mezin ku di dilê wî de pangorî bûn, bi dengê zelal û nerm yê xwe der bike, lê hunera Birê wek gencîneyekê dest lênedayî bo hunermend û gelê Kurd bi mîrat maye.

Birê yek ji wan kilambêjên bêmînak bû ku mil bi milê xebata hunerî di meydana xebata neteweyî de wek Pêşmerge û şervanekî azadiyê dixebitî. Wî nemirî piştî çend sal Pêşmergayetiyê bi sedema kalbûnê bi neçarî bera xwe da jiyana xerîbiyê û bo heyamê çend salan li Turkiyê bû koçber, lê li wir jî kete ber derbeya dijminan û bi çend guleyan birîndar bû.



Dîmenek ji gundê Îbrahîm Newrozî (Bawan)

Piştî vegeryan bo nav xizm û kesên xwe ku êdî nesax û pîr bibû, lê dîsan jî weke endamekî bi emeg yê PDK Îranê heta roja mirinê ji xebata siyasî dest ber neda.

Birê evîndarê bedevî, tebayî û azadiyê bû. Lewra wek kesayetiyekî xwedî qedr û qîmet û xwedî merifet di nava civatên xelkê Serhedê de rêz û hurmetekî xasmanî hebû.

Hewce ye ku şirît û berhemên hunerî yên Birê ji aliyê dezgehên çandî û xemxorên hunera kilasîk ya Kurdî ve bêne komkirin û lêkolînek dîrokî, çandî û civakî jê bihê kirin û di encam de berhemeke nivîskî û peykerekê hunerî jê bihê çêkirinê.

**Riha wî şad û cihê wî beheşt be.**

# DURISTÎ

**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com



Her têgînek li gorî bikaranîna xwe û her bikaranînek jî li gorî têgîna xwe watedar dibe. Belê mixabin her gav her tişt li dewsa xwe, li ser a xwe û li sêra xwe namîne. Gelek tişt li gorî nêrîn û feraseta mirov diguherin, dişêwin û dirûv digirin. Ango hin tişt hin caran bi destê mirov nirxdar û manîdar û hin caran jî talan û wêran dibin.

Çi dibe bila bibe, her heyîn bi dijberê xwe re dijî û li ser piyan dimîne. Û her dijber jî bi dijminê xwe re di nav şer û pevçûneke domdar de ye. Belê hemû hebûn û heyînên ku li hemberî hev û din şer dikin; hin jê xwediyê taybetiyên erênî û hin jê jî xwediyê taybetiyên neyînî ne. Taybetiyên erênî xwezayî û yên neyînî çêkirî ne. Taybetiyên xwezayî bi her mirovî/ê re peyde dibin; belê yên çêkirî paşê bi mirov re digihên. Em ê jî di vê kurtenivîsê de li ser du têgînên dijber û dijwate yên ku di jiyana mirov de pevre dijîn û pev diçin, rawestin. Ew jî; yek jê duristî û ya din jî durûtî ye.

Duristî jî di nav de, îro gelek kirû û têgînên girîng, digel wate û bikaranîna xwe hatine mehandin, lewitandin û çilvirandin. Digel hemû neyînî û nebaşiyan, îro nirxê ku her kes dikare bi piştrastî lê xwedî derbikeve û bi hêsayî wê biparêze, dîsa duristî ye. Duristî, ji do heta îro ji hêla her kesî ve wekî pîvang û pileya qencî û dilpakiyê hatiye/tê dîtin û parastin. Her wiha ew, her gav wekî hêjahiyeke hevbeş û erênî ya tevê mirovahiyê hatiye/tê ecibandin û pejiran
din.

Dursitî, çeqa hemû erênî, xweşbînî û başiyên mirovahiyê ye. Duristî qedirşînasî, payeberzî, mezinayî, gewreyî, rûmetdarî, firazwerî, ewlemendî û serbilindî ye. Û hemû nirx û hêjahiyên mirovî li ser vî esasî hatine/têne avakirin. Heke duristî tunebûna, dê îro destketina van nirx û hêjahiyan jî tune bûna. Belê duristî çiye; wate û bikaranîna wê ya rastîn çawa ye; li ku û çawa tê bikaranîn; divê mirov bi dorfirehî li ser vê yekê raweste û hinekî serê xwe biêşîne.

Duristî, di wateteyeke teng û bi ser re de wekî lihevî, ahengdarî, bixweewleyî û ewlemendî tê binavkirin. Di vir de tu pirsgirêk nîn e. Û ev yek jî ji hêla her kesî ve bêşik û bênîqaş tê qebûlkirin. Belê pirsgirêka mezin û giran, nakokiya navbera watedarkirin û bikaranîna duristiyê ye. Ango parastin û nelihevbûna wê, dibe sedema gelek û alozî têkeliyên tund û dijwar. Bi vê neliheviyê re, gelek kêşe û arîşeyên domdar û rûxîner derdikevin holê. Digel van arîşeyan, di nav dil û mêjiyê mirovan de hest û hizirînên erênî û neyînî jî aj didin. Êdî ev yek jî dibe despêka şerê navbera duristî û durûtiyê.

Duristî, pirêzeya qenciyê, belê durûtî bizrê xerabiyê ye. Duristî, kana hestên firştehî belê durûtî, maka hizirînên îblîsî ye. Duristî, wekî kevokeke aştîreng, mirov ber bi asîmanê hêşîn de vedike. Belê durûtî wekî marê di tûr de ye. Bêdeng bi mirov vedide; dixurice û diçe. Li pey xwe tenê cesteke bêhest û bêruh dihêle.

Duristî û durûtî du kirûyên pozber in. Hebûna yekê girêdayî tunebûna ya din e. Her wiha serketina yekê bi binketina ya din ve girêdayî ye. Herdu jî li hemberî hev û din şerekî bidom û bêdeman dikûdînin.

Şerê navbera duristî û durûtiyê, ji do heta îro bêtebat û bêdeman didome. Tiştê ku di nav dil û mêjiyê mirovan de tofanê radike jî ev şer e. Di vî şerî de hin caran hest û hizirînên erênî û hin caran jî yên neyînî bi ser dikevin. Hin caran jî hest û ramînên reşbîn raselitî ser dil û mêjiyê mirov dibin. Hin caran hest û bestên erênî, bi awayekî eşkere di nav dil û hinavên mirov de dilivin û mirov arasteyî bizav û tevgerên fedakar û wefakar dikin. Hin caran jî durûtî, wekî dijminekî hundirîn di nepeniya jiyanê de bi nermovingiyeke konedar, bi mirov re hasil dibe. Hin caran duristî wekî pinpinîkeke berî û bêrî; mirov li ser baskên xwe dike û ber bi gul û kulîlkên xêrxawaziyê de difire. Hin caran jî durûtî wekî nexweşiyeke heftpençe di dil û mêjî û mirov de diçêre.

Gotina dawî, şerê navbera duristî û durûtiyê ne şerekî jirêzê, ketberê û demdemî ye. Şerekî misêwa, domdar û mayînde ye. Heke, di vî şerî de hest û hizirînên erênî di hawara mirov de bên û xwe bidin bi çengê mirov, dê durûtî li duristiyê dagere û serketin bibe para mirov. Na, heke hest û hizirînên neyînî di dil û mêjiyê mirov de biçêrin, dê wê çaxê duristî li durûtiyê bihesile û mirov bibe para binketinê.

**George Berkeley** dibêje: “Kesekî/e ku ji we re bibêje mirovên durist nîn in’ bawer bikin ku yê/ya ne durist ew kes bi xwe ye.”

## Kaniya Helbestan

# Balqîs

**Nîzar Qebanî**
**Werger: Îbrahîm Îbrahîm**

I.
Sipasiya we dikim
Yara min hate kuştin
Hûn dikarin piyalek mey li ser gora wê vexwin...!!
Helbesta min mir
Hûn dizanin ...?
Ji Ereban kes nîne helbestan dikuje ...!!

Belqîs (1)....
Gula dîroka Babil bû
Darek bilind bû di zemîna Îraqê de
Gava dimeşî, dorhêl ji tawûsan dixemlî
û xezal li pey wê dimeşin

Belqîs ....
Êşa min
Êşa helbestan
Di pey te re şînayî serî hilnîne
Tu keskahiya Nînewayî yî
Tu goçera min î
Pelên ava Dicle yî
Xilxala xweşik di lingê Te de ye

** *
Tu kuştin Belqîs...!!!!
Ev çê rengê EREBAN E
Dengê Bibilan dikujin....!!!!
Kanî Seme’ewl....??
Kanî El-muhelhel....??
II.

Êl .. êlan dixwin
Rovî roviyan dikujin
Pilidir pilindiran şerjêdikin
Bi navê çavên te, yên ku di wan de rûniştiye
Ezê li ser Eraban tiştên ku nehatine gotin bêjim.
Derew li ba wan lehengî ye...!!
Dîroka wan, wek wan derew e...!!!

Belqîs ....!!!!!!!!!!!!!!!!
Ji ber çavên min nare
Roj nema derkeve Belqîs
Li ser erdê dinê
Ezê di dadegehê de bêjim:
Leşker bûn diz
Serok bûn bazirgan
û....
çîroka „medem“ korî
bû çîrokek qirêj
em êlek di nav êlan de ne
dîrok ev e BELQÎS...!!!!!!!!!!!!!!!

III
Belqîs....
Helbesta min...şehîda min
Zelala min
Sebe’ê li şahenşahiya xwe digere
çima tu silavê venagerînî li milet...??
tu şahenşahiya mezin î
gelek demsalên “Sumerî” di ser te re çûne
Belqîs civîna mine xweşik e
Cigara min e
Histirên li ser rûyê Mecdeliyê belav bûne
Belqîs...
Rojekê ez te dikim bin stemkariyê
Gava te dikujin li ber ava E'zemiyê
Beyrût....
Her rojekê yekî ji me dikuje
û roja din li yekî din digere
***
mirin tim li ba me ye
Di fîncana qehwa me de ye
Di kilîta mala me de ye
û ....
Di kulîlkên me de ye
û....
Di belavok û tîpên me de ye.

---

(1) Ev helbesta bi navê «Belqîs» ya helbestvanê Ereb î mezin Nîzar Qebanî ye; min ew wergerandiye kurdî. Belqîs navê pîreka wî ye, ku li Beyrûtê hate kuştin

# Roja mirinê

Serbest Urmiye
Serbesturmiye@hotmail.com

Ger rojekê
li ser vê axa bê xwedî
Girtin pêlên behra mirinê
Dîmenê jiyanê li min
Di çembereya çiyayên bê day û bab de
Ger rojekê
Kutan perên xwe melekê mirinê û
Li min girtin sîbera goristanê
Nizarên temen
Ger rojekê te dît ku
bi ser serê min de,
Bilind bû
Dengê elah û ekbera Melayê gund,
Wê demê
Were cem min û
Bigre min di hembêza xwe de
Bila
Bimrim tenê di hembêza te de ez
Da ku nebînin
Ji lorîkê di çava de zahabûyî hêsir
Xêncî te
Kes, derya hêsirên xerîbiyê
Bi ser rûmetê min ê mirî de
Bila bibarin
Dilop, dilop hêsirên rehma te bi tenê
Bila
Tirba min ê bêpar ji evînê
Tenê bi hêsirên te ya dilşikestî
Bibe rûgeha evîndaran
Da ku tu car
Nemire evîn û
Bêwar nemînin, evîndar

# Fîlmekî nû li ser kurdistana sûriyê tê amade kirin



Derhênerê Kurd Hiner Selîm eşkere kir ku ew dê fîlmekê li ser Kurdistana Suriyê amade bike. Piştî ku fîlmê wî 'Dol' di Festîvala Fîlman a Navneteweyî (Berlînale) de hate nîşandan, Selîm ragehand ku ewê di fîlmekî taybet de behsa êşa Kurdên li Kurdistana Suriyê û herwiha siyaseta rejîma Suriyê li dijî wan bike. Selîm ji Malpera Amûdê re diyar kir, ku Kurdistana Suriyê ji wî re pir giring e û ev para Kurdistanê di dilê min de ye. Derhênerê kurd herwiha diyar kiri ku ew bi hin kesan re li ser vê pirojektê axivtiye, bêyî ku ew çi agahiyên din bide.

**Jêder: amude.com**

# Xelata Oskar, Ya Sala 2007'an



Rê û resma xelata Oskar, ya sala 2007'an, ji bo sinemayê, şeva yekşem, 06.12.1385(25.02.2007)'an, dest pê bû.

Di rê û resmê de, "Martin Scorsese", weke baştirîn derhêner seba derhênana fîlma "The Departed"( Yên ji dest çûyî), hate xelatkirin. Xelata baştirîm ektera rola jin di fîlma"The Queen" (**Şa jin)** de, gihîşte xatûna "Helen Mirren" û xelat baştirîn ekterê mêr jî gihîşte " Forest Whitaker", seba rolê wî di fîlma "'The Last King Of Scotland"(Paşayê dawiyê yê Skatlandê) de.

Oskara duyemîn rola baş ya mêran gihîşte ekterê fîlma "Little Miss Sunshine"(Laqirdiya biçûk a Senşîn), " Alan Arkin" û xatûna "Jennifer Hudson"ê jî seba lîstin di fîlma "Dream girls"(Keçên xwevnan) de, xelata vê beşê bir.

Fîlma Almaniyayî ya "The live of Others" (Jiyana kesên din), xelata Oskara baştirîn fîlmên bîhanî, wergirt. Di para fîlmên kartonî de xelata baştirînê gihîşte fîlma kartonî ya "Happy feets" (Lingên bextewer) û her wiha di para fîlmên komêdî de, fîlma " West side bank" (Çîroka qeraxa Xezeyê), Oskara baştirîn fîlma kurt ya komêdî bir.

Di heman rê û resmê de çend xelatên din jî pêşkêşî senaryo (çîrok), deng , derînanên hunerî yên taybet , mîksaj û montajê, hatin kirin

**Ji bo bersîvdana Xaçepirsa hejmaran (Sudoku)yê, tenê van sê xalên jêrîn berçav bigirin:**

**1. Hejmarên 1-9'ê di xet(xêz) û stûna serjêr de tenê carekê dubare dibe.**
**2. Hejmarên 1-9'ê di xet(xêz) û stûna çeprast de tenê carekê dubare dibe.**
**3. Hejmarên 1-9'ê di nava çargoşeke 3×3 de tenê carekê dubare dibe.**

## Xaçepirsa Hejmaran (Sudoku)

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | 6 | | | | 7 | 5 | 3 | 8 |
| 4 | 2 | 3 | 9 | | | | 7 | 1 |
| | 7 | | | 6 | | | 9 | 2 |
| | 1 | | 8 | | | 2 | 5 | 6 |
| | | 8 | | 5 | 6 | 7 | | 3 |
| 2 | | | | 7 | 3 | | | |
| 5 | | | 6 | 4 | | | | |
| 6 | 3 | 4 | 7 | | | | | 5 |
| 7 | 9 | 2 | 5 | 3 | | | 6 | 4 |

## Bersiva Sudoku a Hejmara 55'an

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 7 | 1 | 8 | 3 | 6 | 5 | 4 | 9 | 2 |
| 4 | 3 | 6 | 1 | 2 | 9 | 5 | 7 | 8 |
| 5 | 2 | 9 | 7 | 8 | 4 | 1 | 3 | 6 |
| 8 | 7 | 5 | 2 | 1 | 6 | 9 | 4 | 3 |
| 2 | 9 | 4 | 8 | 5 | 3 | 6 | 1 | 7 |
| 1 | 6 | 3 | 4 | 9 | 7 | 2 | 8 | 5 |
| 3 | 8 | 2 | 5 | 4 | 1 | 7 | 6 | 9 |
| 9 | 4 | 7 | 6 | 3 | 2 | 8 | 5 | 1 |
| 6 | 5 | 1 | 9 | 7 | 8 | 3 | 2 | 4 |

agirî

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**

# Em Qebûl Nakin Li Herêma Kurdistanê De Şer Li Dijî PKK'ê Were Meşandinê



Birêz Mesûd Barzanî, Serokê Herêma Kurdistanê ev nûçeye ret kir ku ji aliyê herêma Kurdistanê ve çek û alîkarî ji PKK'ê re hatibine kirinê û got: "Ew kesên ku îdiaya vê nûçeyê dikin bila belgeyên xwe pêşkêşî me û raya giştî ya Turkiyeyê bikin". Herwiha got: "Em li Herêma Kurdistanê de qebûl nakin ku şer li dijî PKK'ê bê meşandinê".

**Ger sînorê Kurdistanê bihê bezandinê, em bêdeng namîn in**

Derheq encamdana operasiyonên leşkerî li nava xaka herêmê de got: "Ger êrîşa leşkerî li nav xaka Turkiya de bê kirînê, eva girêdayî bi ç wan e, lê sînorê Kurdistanê bihê bezandinê em bêdeng namîn in. Turkiye çiqas serweriyê bi xwe bide em jî ewqas dê girîngiyê bi serweriya xwe bidin. Em dê welatê xwe biparêzin û eva jî mafê berheq yê me ye".

Derheq mekanîzama berbirû bûna her sê aliyên Amerîka, Turkiye û Îraqê bi nisbet careseriya pirsa PKK'ê re got: "Mijara han çi li Hewlêrê be û çi jî li Bexdayê, dikare were goftugo kirinê. Li vê derheqê de helwesta me rohn û eşkere ye. Ger rêçareyeke aştiyane li cihê leşkerî bibe armanc, em dê bibin bi parek ji prosesê, lê berevajî wê, em beşdariyê tê de nakin".

**Nabe dewleta Kurdî bi xeyal bihê zanîn**

Birêz Barzanî herwiha li ser avakirina dewleta Kurdî wiha axivî: "Nabe dewleta Kurdî bi xeyal bihê zanîn, belkî divêt bi rastiyek bihê mêzekirin. Bo vê meremê jî renge em bi Ereb, Turk û Îraniyan re bigihîjin armancekê".

Herwiha got: "Divêt Turkiya û Îran adet bi vê ra û dîtinê bikin ku Kurdan jî mafê dewleta serbixwe heye".

**Dîrok li hemberî gelê Kurd de dadperwerane nebûye**

Serokê Kurdistanê da zanîn ku "Kurd li deverê de xwedî nasnameyek 40 milyon kesî ye, mixabin dîrok li hemberî gelê Kurd de dadperwerane nebûye û Kurdistan li ser çend welatan de hatiye parvekirinê. Lê cehd û tekoşîn bona têkdana nasnameya Kurdî û bi Ereb, Turk û Farskirina wan jî serkevtî nebûye û ne rêya çareseriya pirsgirêkan bûye".

"Lewre sîstemek serbixwe mafê rewa û berheq yê Kurdan e. Ez weke takekê dibêjim bila em ew kosp û arîşeyên navbera Kurd û cîranan de, rakin. Bona vê yekê jî dewletek serbixwe ya Kurdî bi tund û tûjiyê re çê nabe, ji berku li rêya jihev têgihîştin û pasrastina berjewendiyan bi dest tê"

**Diyalog baştirîn rêçare bo çareserkirina pirs û têgehîştinên şaş e**

Barzanî herwiha li ser hewlên Turkiyê bo pêwendî û diyaloga bi Herêma Kurdistanê re got: "Em li hemberî wan hewlane de keyxweş in, çimku em li ser vê baweriyê ne ku diyalog baştirîn rêçare bo çareserkirina pirs û têgehîştinên şaş e. Çimku em cîranên hev in, diyalog bo berjewendiyên her du aliyan hewce ne û take rêya parastina berjewendiyên gelê Kurdistanê û Turkiye li wê de ye.

**"Peyamner"**




### Biderewzanîna Nûçeyekê:

# Endametiya PDK Îranê Di Enternasyonala Sosyalîst De Nehatiye Helawîstin

Di nûçeyek nerast de ku di malpera Rênêsansê de belav bûye, hatiye ku endametiya PDK Îranê di Enternasyonala Sosyalîst de piştî veqetiyana taqima Restigar(Mela Hesen), ji PDK Îranê, hatiye helawîstin.

PDK Îranê endamê "Obzêrvêr" ê Enternsyonala Sosyalîst e û cudabûna taqima han tu bandorek bi ser endametiya partiyê de nebûye. Hin aliyên din ên Kurdên Îranê jî wek takekes, di çend rojên borî de ji aliyê birêz Loyîs Eyala, Sekreterê Giştî yê Enternasyonala Sosyalîst ve, hatine wergirtin.

Bi vê hincetê û hevdem tevî biderewzanîna nûçeya malpera Rênêsansê, hêvîdar in ku kesên ku di vê derheqê de nigeran in yan jî pirsyarek hene, seredana malpera Enternasyonala Sosyalîst bikin û her wiha dikarin tevî nûneriya PDK Îranê li derveyî welat de pêwendiyê bigirin.

**PDK Îranê – Nûneriya Derveyî Welat**

# Bi Sedan Kes Li Belûçistanê De Hatin Girtin




Piştî teqîna roja 25'ê Rêbendanê li bajarê Zahidanê ku bû sebebê kuştin û birîndarbûna 44 kesan, hêzên Rejîma Komara Îslamî bi sedan kes ji xelkê Belûçistanê destbiser kirine.

Li gor nûçeyan rewş û etmosfereke polîsî li devera han de hakim e û tenahî û ewlehiya xelkê deverê bi metirsiyê re berbirû kiriye. Sedema vê jî vedigere ser tund û tûjî û givaş û tepeseriya xelkê vê deverê ji aliyê hêzên rejîmê ve.

Hêjayî gotinê ye ku li çend mehên borî de, çend teqîn û pêvçûn ji aliyê girûpek çekdar bi navê "Cundila" tevî hêzên rejîmê çêbûne û rejîmê çend kes ji xelkê bê guneh bi tawana beşdarî li teqînan de îdam kirine.